**Nûbihar**: 21

ÇIL HEDÎS
Îmamê Newewî

**Werger**
Selman Dilovan

**Editor**
Süleyman Çevik

**Berg**
İHB Reklam Ajansı

**Rûpelsazî**
Dawud Rêbiwar

**Baskı ve Cilt**
Alioğlu Matbaacılık Bas. Yay. ve Kağ. San.
Tic. Ltd. Şti. Orta Mah. Fatin Rüştü Sk.
No: 1-3/A Bayrampaşa / İst.
Tel: 0212 612 95 59

Çapa 1. 1999
Çapa 2. 2012

ISBN: 978-605-5402-43-3
Yayın Sertifika No: 16919

**Nûbihar**
Pak Ajans Yayıncılık Ltd. Şti.
Büyük Reşitpaşa Cad.
Yümni İş Merkezi No: 22/29
Vezneciler – İstanbul
Tel&Faks: 0212 519 00 09
www.nubihar.com | email: nubihar@gmail.com

بســم الله الرحمن الرحيم



## PÊŞGOTINA ÇAPA DUYEM

Weke ku tê zanîn, Qur'an û Hedîs du çavkanî ne ku jiyana mislimanan tenzîm dikin û rê nîşanî wan didin. Çavkaniya yekem her tiştî îzah nake. Carna qet behsa tiştekî nake, carna bi bal tiştekî ve îşaret dike, carna jî tenê tişta herî girîng dibêje. Loma jî hedîsên cenabê Pêxember (s.) di jiyana mislimanan de xwediyê giringiyeke mezin in.

Yehya b. Şerefeddînê Newewî ku di nav alema îslamê de bi "Îmamê Newewî" tê naskirin ji mijarên bawerî, exlaq, îbadet, mafê jîndaran û hwd. li gora xwe 42 hedîsên herî girîng hilbijartine û kirine kitêb. Çawa ku Îmamê Newewî jî di pêşgotina xwe de dibêje, gellek alimên beriya wî jî xwe sipartine hedîsa; "Kî ji ummeta min re çil hedîsan ji mijarên dînî jiber bike, roja qiyametê yê Xweda wî di nav feqîh û aliman de bîne heşrê." û bi navê *el-Erbe'în* berhemên ji çil hedîsî pêkhatî anînê holê. Jiber meşhûrbûna navê wî û ji ber hilbijartina hedîsên muhîm *Çil Hedîs*a Îmamê Newewî ji berhemên bi vî awayî bêtir deng daye û belav bûye. Di pey Îmamê Newewî re jî berhevkirina çil hedîsan dewam kiriye, lê dîsan jî tu berhem neketine pêşiya berhema wî.

*Çil Hedîs*a Îmamê Newewî di eslê xwe de ji 42 hedîsan pêk tê, lê bi navê *el-Erbe'în* yanî "Çil Hedîs" tê binavkirin. Ji qerna heftan ya hicrî heta îro di nav mislimanan de tê naskirin û bi *Riyadussalihînê* re meşhûrtirîn kîtaba hedîsê ye ku hatiye ber-

hevkirin. Ji ber dewlemendbûna naveroka xwe, di medresên Kurdan de her feqîyekî weke kîtaba rêzê ev hedîs xwendine û jiber kirine. Loma jî ev kîtaba han hem ji aliyê dînî ve, hem jî ji ber ku bûye parçeyek ji çanda me, me elaqedar dike.

***

**Cureyên Hedîsan:**

Li gor naverok û pêbaweriya rîwayetkirina/ragihandina hedîsan gelek celebên wan hene. Lê bi giştî di bin du navan de mirov dikare qala wan bike:

**1. Hedîsên Sehîh (Hedîsên Rast):** Kesên ku hedîs rîwayet kirine, adil û têgihiştî ne. Bi gotineke din, rêza rîwayetkirina hedîsê ji kesên pêbawer pêk tê. Ev cureyê hedîsê meqbûl e, hedîs pêbawer e.

**2. Hedîsên Zeîf:** Anku hedîsên ku guman di wan de heye, gelo Pêxember gotiye yan na.

Di vê kitêbê de hedîsên *hesen*, *musned* û *mursel* jî derbas dibin.

*Hedîsa Hesen (Hedîsa Xweşik):* Ev cureyê hedîsê di navbera sehîh û zeîf de ye lê nêzîktirê sehîhê ye, jê tê bawerkirin.

*Hedîsa Mursel:* Rawî (yê ku radigihîne) ji tabiîyan e, sehabî dîtine, ji sehabiyan hedîs bihîstiye, lê dema ku rîwayet kiriye, bêyî ku navê sehabî bibêje, gotiye, "Pêxember gotiye."

*Hedîsa Musned:* Kesê dawî û sehabiyê ku hedîs ji Pêxember neqil kiriye hemî bi hev ve girêdayî ne, li gor rêzê hevûdin dîtine.

***

Çapa pêşîn ya vê kitêbê di sala 1999an de bûbû. Di vê çapa nû de Selman Dilovan careke din li wergera wê hûr bû, Mela Seîd Girdarî jî Kurdî û Erebiya wê dan ber hev û teshîh kir. Bi vî awayî ev berhem ji bo çapa duyem hate amadekirin.

Serkeftin her bi Xwedê ye.

**Nûbihar**

# بســـم الله الرحمن الرحيم



الحمد لله رب العالمين قيوم السموات والأرضين، مدبر الخلائق أجمعين، باعث الرسل -صلواته وسلامه عليهم- إلى المكلفين، لهدايتهم وبيان شرائع الدين، بالدلائل القطعية وواضحات البراهين.

أحمده على جميع نعمه، وأسأله المزيد من فضله وكرمه، وأشهد أن لا إله إلا الله الواحد القهار، الكريم الغفار، وأشهد أن سيدنا محمداً عبده ورسوله وحبيبه وخليله أفضل المخلوقين، المكرم بالقرآن العزيز المعجزة المستمرة على تعاقب السنين، وبالسنن المستنيرة للمسترشدين، المخصوص بجوامع الكلم وسماحة الدين، صلوات الله وسلامه عليه وعلى سائر النبيين والمرسلين، وآل كل وسائر الصالحين.

أما بعد: فقد روينا عن علي بن أبي طالب، وعبد الله بن مسعود، ومعاذ بن جبل، وأبي الدرداء، وابن عمر، وابن عباس، وأنس بن مالك، وأبي هريرة، وأبي سعيد الخدري رضي الله تعالى عنهم من طرق كثيرات بروايات متنوعات؛ أن رسول الله صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قال: «من حفظ على أمتي أربعين حديثاً من أمر دينها بعثه الله يوم القيامة في زمرة الفقهاء والعلماء" وفي رواية: «بعثه الله فقيها عالما" وفي رواية أبي الدرداء: «وكنت له يوم القيامة شافعا وشهيدا" وفي رواية ابن مسعود: « قيل له: «ادخل من أي أبوب الجنة شئت" وفي رواية ابن عمر «كُتِب في زمرة العلماء وحشر في زمرة الشهداء" واتفق الحفاظ على أنه حديث ضعيف وإن كثرت طرقه.

وقد صنّف العلماء رضي الله تعالى عنهم في هذا الباب ما لا يُحصى من المصنّفات، فأول من علمته صنف فيه: عبد الله بن المبارك، ثم محمد بن أسلم الطوسي العالم الرباني، ثم الحسن بن سفيان النسائي، وأبو بكر الآجُرّي، وأبو بكر

بن إبراهيم الأصفهاني، والدارقطني، والحاكم، وأبو نعيم، وأبو عبد الرحمن السلميّ، وأبو سعيد الماليني، وأبو عثمان الصابوني، وعبد الله بن محمد الأنصاري، وأبو بكر البيهقي، وخلائق لا يُحصون من المتقدمين والمتأخرين، وقد استخرت الله تعالى في جمع أربعين حديثاً اقتداء بهؤلاء الأئمة الأعلام وحفاظ الإسلام، وقد اتفق العلماء على جواز العمل بالحديث الضعيف في فضائل الأعمال، ومع هذا فليس اعتمادي على هذا الحديث، بل على قوله صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ في الأحاديث الصحيحة: «ليبلغ الشاهد منكم الغائب" وقوله صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «نضر الله امرأً سمع مقالتي فوعاها فأدّاها كما سمعها".

ثم من العلماء من جمع الأربعين في أصول الدين، وبعضهم في الفروع، وبعضهم في الجهاد، وبعضهم في الزهد، وبعضهم في الآداب، وبعضهم في الخطب، وكلها مقاصد صالحة رضي الله تعالى عن قاصديها، قد رأيت جمع أربعين أهم من هذا كله، وهي أربعون حديثاً مشتملة على جميع ذلك، وكل حديث منها قاعدة عظيمة من قواعد الدين قد وصفه العلماء بأن مدار الإسلام عليه، أو هو نصف الإسلام أو ثلثه أو نحو ذلك.

ثم ألتزم في هذه الأربعين أن تكون صحيحة، ومعظمها في صحيحي البخاري ومسلم، وأذكرها محذوفة الأسانيد، ليسهل حفظها ويعم الانتفاع بها إن شاء الله تعالى، ثم أُتبعها بباب في ضبط خفي ألفاظها.

وينبغي لكل راغب في الآخرة أن يعرف هذه الأحاديث، لما اشتملت عليه من المهمات، واحتوت عليه من التنبيه على جميع الطاعات، وذلك ظاهر لمن تدبّره، وعلى الله اعتمادي، وإليه تفويضي واستنادي، وله الحمد والنعمة، وبه التوفيق والعصمة.

يحيى بن شرف الدين النووي

## BI NAVÊ XWEDAYÊ MIHRÎVANÊ DILOVÎN



Hemd ji Xwedayê alemê re be ku erd û ezman radigire û rêvebirê hemî mexlûqan e. Ew Xwedayê ku Pêxember (selat û selamên Xweda li wan bin) şandine bal mirovan, da ku wan hîdayet bikin, rêya dîn bi delîlên vebirî û eşkere nîşanî wan bidin.

Ji bo ni'metên wî tevan hemdê wî dikim û hê jî ji fedl û comerdiya wî dixwazim. Ez şehde didim ku tu îlah nîn in ji bilî Allah; yê yek, Qehhar (yê ku têk dibe, ji holê radike), Kerîm (Yê comerd, ku berî xwestinê dide) û Xeffar (Yê ku gunehan dibexşîne). Û ez şehde didim ku mezinê me Muhemmed evdê wî, pêxemberê wî, hezkirê wî û dostê wî ye, çêtirê hemî mirovan e. Ewê ku bi Qur'ana ezîz qedrê wî hatiye girtin, ew Qur'ana ku tevî bihûrîna salan jî tim û tim mûcîze ye. Ew Pêxemberê ku bi temamê gotinên xwe û bi dînê bexşîner ji murşidan re ronî ye. Selat û selamên Xweda li wî û li nebî û resûlên din, li peyrewên wan û li hemî mirovên din yên qenc bin.

Pey re...

Me ji 'Elî b. Ebû Talib, ji 'Ebdullah b. Mes'ûd, ji Mu'az b. Cebel, ji Ebû Derda, ji Ibnu 'Umer, ji Ibnu 'Ebbas, ji Enes b. Malik, ji Ebû Hureyre û ji Ebû Se'îdê Xudrî (Xweda ji wan razî be) bi gellek rêyan û bi rîwayetên cihê rîwayet kiriye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Kî ji ummeta min re, çil hedîsên ji mijarên dînî jiber bike, roja qiyametê yê Xweda wî di nav feqîh û aliman de bîne heşrê."

Di rîwayeteke din de wiha hatiye: "Xweda wî feqîh û 'alim tîne heşrê."

Di rîwayeta Ebu Derda de: "Ez roja qiyametê jê re şahid û şefaetkar im."

Di rîwayeta b. Mes'ûd de: "Jê re tê gotin, tu di kîjan deriyî re bixwazî, di wî re bikeve bihiştê."

Di rîwayeta Ibnu 'Umer de: "Ji aliman tê nivîsîn û di nav şehîdan de tê heşirkirin." hatiye gotin.

Ehlê hedîsê bi îttîfaq gotine ku çendîn rîwayetên vê hedîsê pir bin jî, hedîseke zeîf e.

Aliman (Xweda ji wan razî be) di vê babetê de pirtûkên ku nayêne jimartin çêkirine:

Yê pêşî ku ez dizanim Ebdullah b. Mubarek di vî babetî de kitêb çêkiriye. Paşê Alimê rebbanî Muhemmed b. Eslemê Tûsî, paşê Hesen b. Sufyanê Nesaî, Ebûbekrê Acurrî, Ebûbekr Muhemmed b. Îbrahîm yê Esfehanî, Darequtnî, Hakim, Ebû Nu'eym, Ebû 'Ebdurrehmanê Sulemî, Ebû Se'îdê Malînî, Ebû 'Usmanê Sabûnî, 'Ebdullah b. Muhemmedê Ensarî, Ebûbekrê Beyheqî û gellekên ku nayêne jimartin ji pêşî û paşiyan...

Min ji Xwedê arîkarî xwest ku ez çil hedîsî berhev bikim û bidim pey wan pêşengan; nîşan û parêzgerên Îslamê.

Jixwe aliman îttîfaq kirine ku emelkirina bi hedîsa zeîf di derbarê karên qenc de caiz e. Digel vê jî, ewleyiya min tenê ne li ser vê hedîsê ye, belkî li ser gotinên Pêxember (s.) yên di hedîsên sehîh de ye: "Bila mirovê hazir bigihîne yê ne hazir." û gotina wî (s.) "Xweda wî mirovî rûsipî û ronî bike ku gotinên min bibihîze û têbigihe; û mîna ku bihîstiye jî bigihîne kesên din!"

Paşê hinek aliman li ser usûla dîn, hinekan li ser mijareke fiqhî, hinekan li ser cîhadê, hinekan li ser zuhdê, hinekan li ser adabê û hinekan jî li ser we'zan çil hedîs berhev kirine. Hemî jî bi niyet û armancên baş hatine çêkirin, Xweda ji wan razî be!

Min dît ku berhevkirina çil hedîsên din ji van hemiyan girîngtir e. Ew jî çil hedîsên ku van tevan dixe hundirê xwe. Her hedîsek ji wan bingeheke mezin ji bingehên dîn e. Aliman gotine ku bêhtirê hukmên Îslamê bi wan têne fêhmkirin, nîvê îslamê, yan jî sêyeka wê û hwd...

Ez di vê kitêbê de ji hedîsên *sehîh* pê ve nanivîsim. Pirê wan di herdu *Sehîhên* Buxarî û Muslim de hene. Ezê senedên wan

nebêjim da ku jiberkirina wan hêsan bibe û feyda wan jî giştî be. Paşê jî ezê qala têgihên veşartî û zehmet bikim. Ji ber ku ev hedîs behsa tiştên girîng dikin, her mirovê ku bi eşq û şewq axretê dixwaze, divê wan hîn bibe. Lewra temamê taetê Xwedê ji mirov dixwaze di van hedîsan de ne. Jixwe ev jî ji bo mirovê têgihiştî tiştekî eşkere ye.

Û ewleyiya min bi Xwedê ye, meyl û îltîca min bi bal wî ve ye. Spasî û şukir her ji bo Wî ne, serkeftin û serfirazî tenê bi Wî ye.

**Yehya b. Şerefeddîn en-Newewî**

## الحديث الأول

عَنْ أَمِيرِ الْمُؤْمِنِينَ أَبِي حَفْصٍ عُمَرَ بْنِ الْخَطَّابِ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: «إِنَّمَا الْأَعْمَالُ بِالنِّيَّاتِ، وَإِنَّمَا لِكُلِّ امْرِئٍ مَا نَوَى، فَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ إِلَى اللهِ وَرَسُولِهِ فَهِجْرَتُهُ إِلَى اللهِ وَرَسُولِهِ، وَمَنْ كَانَتْ هِجْرَتُهُ لِدُنْيَا يُصِيبُهَا، أَوْ امْرَأَةٍ يَنْكِحُهَا، فَهِجْرَتُهُ إِلَى مَا هَاجَرَ إِلَيْهِ.»

رواه إماما المحدثين: أبو عبدالله محمد ابن إسماعيل بن إبراهيم بن المغيرة بن بردزبه البخاري، وأبو الحسين مسلم ابن الحجاج بن مسلم القشيري النيسابوري، في صحيحيهما اللذين هما أصح الكتب المصنفة.

## Hedîsa Yekê



Ji Emîrulmu'minîn Ebû Hefs Umer b. Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye min bihîst ku Pêxemberê Xweda (s.) digot:

"Bêguman kirin li gor niyetê ne û ji herkesî re tiştê ku niyet kirî heye. Êdî hicreta /koça kê ji bo Xwedê û Pêxemberê wî be, ji xwe ew ji bo Xwedê û Pêxemberê wî ye. Û hicreta kê jî ji bo bidestxistina dinyayê, yan ji bo zewaca jinekê be, jixwe koça wî jî ji bo wî tiştî ye."

Herdu îmamên muheddisan; Ebû 'Ebdulah Muhemmed kurê Îsmaîlê kurê Îbrahîmê kurê Muxîreyê kurê Berdîzbe, Buxarî; û Ebulhuseyn, Muslim kurê Heccacê kurê Muslimê Quşeyrîyê Nîsabûrî di herdu *Sehîhên* xwe de (*Sehîha Buxarî* û *Sehîha Muslim*) rîwayet kirine ku herdu kîtab rasttirîn kîtabên telîfbûyî/berhevkirî ne.

## الحديث الثاني

عَنْ عُمَرَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَيْضاً قَالَ: «بَيْنَمَا نَحْنُ جُلُوسٌ عِنْدَ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ ذَاتَ يَوْمٍ إِذْ طَلَعَ عَلَيْنَا رَجُلٌ شَدِيدُ بَيَاضِ الثِّيَابِ شَدِيدُ سَوَادِ الشَّعْرِ لاَ يُرَى عَلَيْهِ أَثَرُ السَّفَرِ وَلاَ يَعْرِفُهُ مِنَّا أَحَدٌ حَتَّى جَلَسَ إِلَى النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ فَأَسْنَدَ رُكْبَتَيْهِ إِلَى رُكْبَتَيْهِ وَوَضَعَ كَفَّيْهِ عَلَى فَخِذَيْهِ وَقَالَ: يَا مُحَمَّدُ أَخْبِرْنِي عَنِ الإِسْلاَمِ، فَقَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: اَلإِسْلاَمُ أَنْ تَشْهَدَ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللهِ، وَتُقِيمَ الصَّلاَةَ، وَتُؤْتِيَ الزَّكَاةَ، وَتَصُومَ رَمَضَانَ، وَتَحُجَّ البَيْتَ إِنِ اسْتَطَعْتَ إِلَيْهِ سَبِيلاً قَالَ: صَدَقْتَ.

فَعَجِبْنَا لَهُ يَسْأَلُهُ وَيُصَدِّقُهُ، قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ الإِيمَانِ، قَالَ: أَنْ تُؤْمِنَ بِاللهِ، وَمَلاَئِكَتِهِ، وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ، وَالْيَوْمِ الآخِرِ، وَتُؤْمِنَ بِالْقَدَرِ خَيْرِهِ وَشَرِّهِ قَالَ: صَدَقْتَ، قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ الإِحْسَانِ، قَالَ: أَنْ تَعْبُدَ اللهَ كَأَنَّكَ تَرَاهُ، فَإِنْ لَمْ تَكُنْ تَرَاهُ فَإِنَّهُ يَرَاكَ قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنِ السَّاعَةِ، قَالَ: مَا الْمَسْئُولُ عَنْهَا بِأَعْلَمَ مِنَ السَّائِلِ قَالَ: فَأَخْبِرْنِي عَنْ أَمَارَاتِهَا، قَالَ: أَنْ تَلِدَ الأَمَةُ رَبَّتَهَا، وَأَنْ تَرَى الْحُفَاةَ الْعُرَاةَ الْعَالَةَ رِعَاءَ الشَّاءِ يَتَطَاوَلُونَ فِي الْبُنْيَانِ ثُمَّ انْطَلَقَ فَلَبِثْتُ مَلِيًّا ثُمَّ قَالَ: يَا عُمَرُ أَتَدْرِي مَنِ السَّائِلُ؟ قُلْتُ: اَللهُ وَرَسُولُهُ أَعْلَمُ، قَالَ: فَإِنَّهُ جِبْرِيلُ أَتَاكُمْ يُعَلِّمُكُمْ دِينَكُمْ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Duduyan



Dîsa ji Umer (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Demekê em li cem Pêxemberê Xweda (s.) rûniştî bûn. Ji nişka ve mirovekî cilên wî pir spî, porê wî pir reş bi ser me de hat. Tu nîşanên rêwîtiyê lê xweya nedikirin. Tu kesî ji me ew nas nedikir. Hat li cem Pêxemberê Xweda rûnişt, çokên xwe spartin çokên wî, destê xwe danîn ser ranên xwe û got:

"Ey Muhemmed! Ji min re behsa îslamê bike!" Pêxember jê re got: "Îslam ew e; tu şehde bidî ku ji bilî Allah tu xweda nîn in û Muhemmed jî pêxemberê Allah e, tu nimêjê bikî, zekatê bidî, Remezanê rojî bigirî û herî Hecê -eger bikaribî-."

Wî mirovî got: "Te rast got." Em jê şaş man; hem jê pirs dikir, (mîna ku nizanibû) hem jî ew rast didêrand (mîna ku dizanibû).

Mêrik got: "Ji min re behsa îmanê bike!"

Pêxember got: "Îman ew e ku tu baweriyê bi Allah, bi ferişteyên wî, bi kitêbên wî, bi pêxemberên wî, bi roja axretê û bi qederê; başê wê jî û xirabê wê jî bînî."

Got: "Te rast got." û got: "Ka ji min re qala qenciyê bike!"

Pêxember got: "Qencî ew e; mîna ku tu Xwedê dibînî jê re îbadet bikî, çendî ku tu wî nebînî jî ew te dibîne."

Mêrik got: "Ka ji min re qala qiyametê bike!"

Pêxember got: "Yê ku jê tê pirsîn ji yê ku dipirse ne zanatir e."

Got: "Naxwe ka ji min re qala nîşanên wê bike!" Pêxember got: "Ku cariye xwediya xwe biwelidîne. Ku tu bibînî mirovên pêxwas, tazî, xizan û şivanên pez di bilindkirina avahiyan de pêşbaziyê dikin."

Paşê ew mirov rabû û çû. Ez çendekê mam, pişt re Pêxember got: "Ey 'Umer ma tu dizanî ewê ku dipirsî kî bû?" Min got: "Xweda û Pêxemberê wî çêtir dizanin." Got: "Ew Cibrîl bû, hat ku dînê we hînî we bike."

Muslim rîwayet kiriye.

# الحديث الثالث

عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَبْدِ اللهِ بْنِ عُمَرَ بْنِ الخَطَّابِ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: سَمِعْتُ النَّبِيَّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: «بُنِيَ الإِسْلامُ عَلَى خَمْسٍ: شَهَادَةِ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللهِ، وَإِقَامِ الصَّلاَةِ، وَإِيتَاءِ الزَّكَاةِ، وَحَجِّ البَيْتِ، وَصَوْمِ رَمَضَانَ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Sisêyan



Ji Ebû 'Ebdurrehman 'Ebdullah b. 'Umer b. Xettab (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min bihîst ku Pêxemberê Xweda wiha digot:

"Îslam li ser pênc hîman hatiye avakirin: Şehdedayina ku ji bilî Allah tu xweda nîn in û Muhemmed pêxemberê wî ye, kirina nimêjê, dayina zikatê, çûna Hecê û rojîgirtina Remezanê."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث الرابع

عَنْ أَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ عَبْدِ اللهِ بنِ مَسْعُودٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: حَدَّثَنَا رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ وَهُوَ الصَّادِقُ الْمَصْدُوقُ: «إِنَّ أَحَدَكُمْ يُجْمَعُ خَلْقُهُ فِي بَطْنِ أُمِّهِ أَرْبَعِينَ يَوْمَاً نُطْفَةً، ثُمَّ يَكُونُ عَلَقَةً مِثْلَ ذَلِكَ، ثُمَّ يَكُونُ مُضْغَةً مِثْلَ ذَلِكَ، ثُمَّ يُرْسَلُ إِلَيْهِ الْمَلَكُ فَيَنْفُخُ فِيهِ الرُّوحَ، وَيُؤْمَرُ بِأَرْبَعِ كَلِمَاتٍ: بِكَتْبِ رِزْقِهِ وَأَجَلِهِ وَعَمَلِهِ وَشَقِيٌّ أَوْ سَعِيدٌ، فَوَاللهِ الَّذِي لاَ إِلَهَ غَيْرُهُ إِنَّ أَحَدَكُمْ لَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ الْجَنَّةِ حَتَّى مَا يَكُونُ بَيْنَهُ وَبَيْنَهَا إِلاَّ ذِرَاعٌ فَيَسْبِقُ عَلَيْهِ الكِتَابُ فَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ فَيَدْخُلُهَا، وَإِنَّ أَحَدَكُمْ لَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ النَّارِ حَتَّى مَايَكُونُ بَيْنَهُ وَبَيْنَهَا إِلاَّ ذِرَاعٌ فَيَسْبِقُ عَلَيْهِ الْكِتَابُ فَيَعْمَلُ بِعَمَلِ أَهْلِ الْجَنَّةِ فَيَدْخُلُهَا.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Çaran



Ji Ebû 'Ebdurrehman 'Ebdullah b. Mes'ûd (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye:

Pêxemberê Xweda (s.) -ku rastgo ye û rastiya wî hatiye pejirandin-, ji me re got:

"Bêguman afirandina heryekî ji we di zikê dêya wî de çil rojî digihe hev, dibe dilopek av. Piştî ku ewqasî din di ser re derbas dibe, dibe xwîneke tîr. Piştî ku ewqasî din di ser re derbas dibe, dibe parçeyek goşt. Paşê ferişte bi bal wî ve têt şandin, ew ferişte rûh pif dikiyê û bi çar tiştan tê fermankirin: Bi nivîsandina rizqê wî, dema mirina wî, kirinên wî, û gelo xirab e yan qenc e. Sond bi wî Xwedayê ku jibilî wî tu îlah nîn in! Yek ji we kirinên ehlê bihiştê dike, heta ku di navbera wî û wê de ji gazekê pê ve tu tişt namîne, lê deftera emelê wî zora wî dibe; êdî kirinên ehlê agir dike û dikeviyê. Û bêguman yek ji we kirinên ehlê agir dike, heta ku di navbera wî û agir de ji gazekê pê ve tu tişt namîne, lê deftera wî zora wî dibe, êdî kirinên ehlê bihiştê dike û dikeviyê."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث الخامس

عَنْ أُمِّ الْمُؤْمِنِينَ أُمِّ عَبْدِ اللهِ عَائِشَةَ - رَضِيَ اللهُ عَنْهَا - قَالَتْ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «مَنْ أَحْدَثَ فِي أَمْرِنَا هَذَا مَا لَيْسَ مِنْهُ فَهُوَ رَدٌّ.»

رواه البخاري ومسلم، وفي رواية لمسلم؛ «مَنْ عَمِلَ عَمَلاً لَيْسَ عَلَيْهِ أَمْرُنَا فَهُوَ رَدٌّ.»

## Hedîsa Pêncan



Ji Dayika mu'minan, Ummu 'Ebdîllah 'Aîşe (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye, Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Kî di vî karê me yê han (îslamiyetê) de tiştekî ku ne jê ye çêbike, ew tişt nayê qebûlkirin."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

Rîwayeteke Muslim jî wiha ye: "Kî karekî ku destûra me pê tune be bike, ew tê redkirin."

## الحديث السادس

عَنْ أَبِي عَبْدِ اللهِ النُّعْمَانِ بْنِ بَشِير رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: «إِنَّ الْحَلالَ بَيِّنٌ وَإِنَّ الْحَرَامَ بَيِّنٌ وَبَيْنَهُمَا أُمُورٌ مُشْتَبِهَاتٌ لاَ يَعْلَمُهُنَّ كَثِيرٌ مِنَ النَّاسِ، فَمَنِ اتَّقَى الشُّبُهَاتِ فَقَدِ اسْتَبْرَأَ لِدِينِهِ وعِرْضِهِ، وَمَنْ وَقَعَ فِي الشُّبُهَاتِ وَقَعَ فِي الْحَرَامِ، كَالرَّاعِي يَرْعَى حَوْلَ الْحِمَى يُوشِكُ أَنْ يَقَعَ فِيهِ، أَلا وَإِنَّ لِكُلِّ مَلِكٍ حِمًى، أَلا وَإِنَّ حِمَى اللهِ مَحَارِمُهُ، أَلاَ وإِنَّ فِي الْجَسَدِ مُضْغَةً إِذَا صَلَحَتْ صَلَحَ الْجَسَدُ كُلُّهُ وإِذَا فَسَدَتْ فَسَدَ الْجَسَدُ كُلُّهُ أَلاَ وَهِيَ الْقَلْبُ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Şeşan



Ji Ebû 'Ebdullah Nu'man b. Beşîr (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min bihîst ku Pêxemberê Xweda (s.) digot:

"Bêguman tiştên helal kufş in û tiştên heram jî kufş in. Di navbera wan de hinek tiştên biguman hene, ku pirê mirovan wan nizanin. Vêca kesê xwe ji wan tiştên biguman biparêze, bi rastî wî dînê xwe û şerefa xwe parastine. Kî bikeve nav tiştên biguman, yê bikeve nav tiştên heram jî. Eynî mîna şivanê ku li dora zeviyê diçêrîne, dike ku zeviyê jî biçêrîne. Bila haya we jê hebe ku ji her padişahî re tixûbin hene. Tixûbên Xwedê jî ew tişt in ku heram kirine. Û bila haya we jê hebe ku di bedenê de parçeyek heye; dema ku ew baş bibe, beden hemî baş dibe û dema ew xirab dibe beden jî hemî xirab dibe: Bizanibin ku ew jî dil e."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث السابع

عَنْ أَبِي رُقَيَّةَ تَمِيم بْنِ أَوْسٍ الدَّارِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَنَّ النَّبِيَّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «اَلدِّينُ اَلنَّصِيحَةُ. قُلْنَا: لِمَنْ يَارَسُولَ اللهِ؟ قَالَ: للهِ، وَلِكِتَابِهِ، وَلِرَسُولِهِ، وَلِأَئِمَّةِ الْمُسْلِمِينَ، وَعَامَّتِهِمْ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Heftan



Ji Ebû Ruqeyye Temîm b. Ewsê Darî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye:

"Dîn şîret e." Me got: "Ji kê re?" Got: "Ji Allah re, ji kîtaba wî re, ji Pêxemberê wî re, ji pêşengên mislimanan û ji tevê wan re."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الثامن

عَنِ ابْنِ عُمَرَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا أَنَّ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «أُمِرْتُ أَنْ أُقَاتِلَ النَّاسَ حَتَّى يَشْهَدُوا أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللهِ وَيُقِيمُوا الصَّلاةَ وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ فَإِذَا فَعَلُوا ذَلِكَ عَصَمُوا مِنِّي دِمَاءَهَمْ وَأَمْوَالَهُمْ إِلاَّ بِحَقِّ الْإِسْلاَمِ وَحِسَابُهُمْ عَلَى اللهِ تَعَالَى.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Heştan



Ji Ibnu 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Ez hatime fermankirin ku bi mirovan re şer bikim, heta ku şehdeyiyê bidin ku ji bilî Allah tu îlah nîn in û Muhemmed pêxemberê Xweda ye, nimêj bikin û zikatê bidin. Gava wan ev tişt bi cih anîn, ji bilî mafê îslamê (wek cezayê hed) xwîna xwe û malê xwe ji min diparêzin û êdî hesabê wan li ser Xwedê ye."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث التاسع

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ عَبْدِ الرَّحْمَنِ بْنِ صَخْرٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: «مَا نَهَيْتُكُمْ عَنْهُ فَاجْتَنِبُوهُ وَمَا أَمَرْتُكُمْ بِهِ فَأْتُوا مِنْهُ مَا اسْتَطَعْتُمْ؛ فَإِنَّمَا أَهْلَكَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ كَثْرَةُ مَسَائِلِهِمْ وَاخْتِلافُهُمْ عَلَى أَنْبِيَائِهِمْ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Nehan



Ji Ebû Hureyre 'Ebdurrehman b. Sexr (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Pêxemberê Xweda (s.) bihîst, digot:

"Tişta ku min nehya we jê kiribe, xwe jê vekişînin! Tişta ku min fermana we pê kiribe, heta ku hûn dikarin bi cih bînin! Lewra ew kesên berî we, tenê ji ber zehfpirsînê û dijberiya pêxemberên xwe helak bûne."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث العاشر

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ: «إِنَّ اللهَ تَعَالَى طَيِّبٌ لاَ يَقْبَلُ إِلاَّ طَيِّباً وَإِنَّ اللهَ أَمَرَ الْمُؤْمِنِينَ بِمَا أَمَرَ بِهِ الْمُرْسَلِينَ فَقَالَ: (يَا أَيُّهَا الرُّسُلُ كُلُوا مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَاعْمَلُوا صَالِحاً) وَقَالَ: (يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا رَزَقْنَاكُمْ) ثُمَّ ذَكَرَ الرَّجُلَ يُطِيلُ السَّفَرَ أَشْعَثَ أَغْبَرَ، يَمُدُّ يَدَيْهِ إِلَى السَّمَاءِ، يَا رَبِّ يَا رَبِّ، وَمَطْعَمُهُ حَرَامٌ، وَمَشْرَبُهُ حَرَامٌ، وَمَلْبَسُهُ حَرَامٌ، وَغُذِيَ بِالحَرَامِ فَأَنَّى يُسْتَجَابُ لَهُ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Dehan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

„Bêguman Xweda pak e û tenê tiştên pak qebûl dike. Tişta ku Xwedê emrê pêxemberan pê kiriye, emrê bawermendan jî bi wê kiriye. Xwedê Teala gotiye: „Gelî pêxemberan! Hûn ji tiştên pak bixwin û kirinên qenc bikin."(1) Û Xwedê Teala dîsa gotiye: „Gelî kesên ku bawerî anîne! Hûn ji tiştên pak yên ku me ji we re kirine rizq bixwin."(2) Paşê Pêxember qala wî merivî kir ku sefereke dirêj kiriye, porê wî geliciye, rûyê wî bi toz e û herdu destên xwe bi ezmanan ve bilin dike, dibêje: „Xwedayê min, Xwedayê min!" Halê wî ev e ku xwarina wî heram e, vexwarina wî heram e, lixwekirina wî heram e û bi heramî jî xwedî bûye. Ma yê çawa duayên wî bên qebûlkirin!"

Muslim rîwayet kiriye.

(1.) Sûretê Mu'mînûn: 23/51.

(2.) Sûretê Beqere: 2/172.

# الحديث الحادي عشر

عَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ الحَسَنِ بن عَلِيّ بنِ أَبِي طَالِبٍ سِبْطِ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ وَرَيْحَانَتِهِ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: حَفِظْتُ مِنْ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «دَعْ مَا يَرِيبُكَ إِلَى مَا لاَ يَرِيبُكَ.»

رواه الترمذي والنسائي وقال الترمذي: حديث حسن صحيح.

## Hedîsa Yazdehan



Ji Ebû Muhemmed, Hesenê kurê 'Elî b. Ebû Talib (r.) neviyê Pêxemberê Xweda û roniya çavên wî (s.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Pêxemberê Xweda (s.) jiber kiriye, digot: "Tişta ku te dixe gumanê dev jê berde, tişta ku te naêxe gumanê bike!"

Tirmizî û Nesaî rîwayet kirine, Tirmizî gotiye "Ev hedîseke *hesen* û *sehîh* e."

## الحديث الثاني عشر

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ:
«مِنْ حُسْنِ إِسْلامِ الْمَرْءِ تَرْكُهُ مَا لاَ يَعْنِيهِ.»
حديثٌ حسنٌ رواه الترمذي وغيره هكذا.

## Hedîsa Diwazdehan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda, (s.) gotiye:

"Terkkirina tiştên ne lazim, ji xweşikiya mislimantiya mirovî ye."

Ev hedîseke *hesen* e, Tirmizî û hinekên din jî wiha rîwayet kirine.

## الحديث الثالث عشر

عَنْ أَبِي حَمْزَةَ أَنَسِ بنِ مَالِكٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ خَادِمِ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ عَنَ النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ:

«لاَ يُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يُحِبَّ لِأَخِيهِ مَا يُحِبُّ لِنَفْسِهِ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Sêzdehan



Ji Ebû Hemze Enes b. Malik -xizmetkarê Pêxember- (r.) hatiye rîwayet kirin ku Pêxember (s.) gotiye:

"Heta yek ji we tişta ku ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re jî nexwaze, nabe bawermend."

Muslim û Buxarî rîwayet kirine.

## الحديث الرابع عشر

عَنِ ابْنِ مَسْعُودٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «لاَ يَحِلُّ دَمُ امْرِئٍ مُسْلِمٍ إِلاَّ بِإِحْدَى ثَلاَثٍ: الثَّيِّبُ الزَّانِي، وَالنَّفْسُ بِالنَّفْسِ، وَالتَّارِكُ لِدِينِهِ الْمُفَارِقُ لِلْجَمَاعَةِ.»

رواه البخاري ومسلم.



Ji b. Mesûd (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Ji sê tiştan pê ve rijandina xwîna mirovê misliman ne helal e: Biyê zinaker, mirovê ku yek kuştiye û yê ku ji dînê xwe derkeve, ji civata îslamê cuda bibe."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث الخامس عشر

عَن أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ الله عَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «مَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيَقُلْ خَيْرًا أَوْ لِيَصْمُتْ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللهِ وَالْيَومِ الْآخِرِ فَلْيُكْرِمْ جارَهُ، وَمَنْ كَانَ يُؤْمِنُ بِاللهِ والْيَوْمِ الْآخِرِ فَلْيُكْرِمْ ضَيْفَهُ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Pazdehan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda, (s.) gotiye:

"Kesê bi Xwedê û roja axretê bawerî anîbe, bila qenciyê bibêje, yan jî neaxive! Kesê bi Xwedê û roja axretê bawerî anîbe, bila qedrê cîranê xwe bigire! Kesê bi Xwedê û roja axretê bawerî anîbe, bila qedrê mêvanê xwe bigire!"

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث السادس عشر

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَنَّ رَجُلاً قَالَ لِلنَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: أَوْصِنِي، قَالَ: «لاَ تَغْضَبْ» فَرَدَّدَ مِرَارًا قَالَ: «لاَ تَغْضَبْ.»

رواه البخاري

## Hedîsa Şazdehan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, dibêje mirovekî ji Pêxember (s.) re got:

“Şîretê li min bike!“ Pêxember got: “Hêrs nebe!“ Wî mirovî çend caran tekrar kir, Pêxember jî her got: “Hêrs nebe!“

Buxarî rîwayet kiriye.

## الحديث السابع عشر

عَنْ أَبِي يَعْلَى شَدَّادِ بنِ أَوْسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ عَنْ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «إِنَّ اللهَ كَتَبَ الْإِحْسَانَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ، فَإِذَا قَتَلْتُمْ فَأَحْسِنُوا الْقِتْلَةَ، وَإِذَا ذَبَحْتُمْ فَأَحْسِنُوا الذِّبْحَةَ، وَلْيُحِدَّ أَحَدُكُمْ شَفْرَتَهُ، وَلْيُرِحْ ذَبِيحَتَهُ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Hivdehan



Ji Ebû Ye'la Şeddad b. Ews (r.) hatiye rîwayetkirin, ku Pêxember (s.) gotiye:

"Bêguman Xwedê li ser her tiştî xweşikayî ferz kiriye. Êdî dema we kuşt, xweşik bikujin, dema we ser jê kir, xweşik ser jê bikin. Kêra xwe jî tûj bikin, da ku heywan zêde neêşe."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الثامن عشر

عَنْ أَبِي ذَرٍّ جُنْدُبِ بنِ جُنَادَةَ وَأَبِي عَبْدِ الرَّحْمَنِ مُعَاذِ بنِ جَبَلٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا عَنْ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «اتَّقِ اللهَ حَيْثُمَا كُنْتَ، وَأَتْبِعِ السَّيِّئَةَ الْحَسَنَةَ تَمْحُهَا، وَخَالِقِ النَّاسَ بِخُلُقٍ حَسَنٍ.»

رواه الترمذي وقال: حديث حسن، وفي بعض النسخ: حسنٌ صحيح.

## Hedîsa Hijdehan



Ji Ebû Zerr Cundub b. Cunade û Ebû 'Ebdurrehman Muaz b. Cebel (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Tu li kû jî bî, ji Xwedê bitirse! Di pey gunehî de qenciyê bike da ku qencî wî gunehî ji holê rabike. Bi mirovan re jî bi exlaqekî xweş bide û bistîne!"

Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîseke hesen e. Di hinek nusxeyan de gotiye hesen û *sehîh* e.

## الحديث التاسع عشر

عَنْ أَبِي عَبَّاسٍ عَبْدِ اللهِ بنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: كُنْتُ خَلْفَ النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَوْمًا فَقَالَ: «يَا غُلاَمُ إِنِّي أُعَلِّمُكَ كَلِمَاتٍ: احْفَظِ اللهَ يَحْفَظْكَ، احْفَظِ اللهَ تَجِدْهُ تُجَاهَكَ، إِذاَ سَأَلْتَ فَاسْأَلِ اللهَ، وَإِذَا اسْتَعَنْتَ فَاسْتَعِنْ بِاللهِ، وَاعْلَمْ أَنَّ الأُمَّةَ لَوْ اجْتَمَعَتْ عَلَى أَنْ يَنْفَعُوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَنْفَعُوكَ إِلاَ بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللهُ لَكَ، وإِن اجْتَمَعُوا عَلَى أَنْ يَضُرُّوكَ بِشَيْءٍ لَمْ يَضُرُّوكَ إِلاَ بِشَيْءٍ قَدْ كَتَبَهُ اللهُ عَلَيْكَ، رُفِعَتِ الأَقْلاَمُ، وَجَفَّتِ الصُّحُفُ.»

رواه الترمذي وقال: حديث حسن صحيح، وفي رواية غير الترمذي: «احْفَظ اللهَ تَجِدْهُ أَمَامَكَ، تَعَرَّفْ إِلَى اللهِ فِي الرَّخَاءِ يَعْرِفْكَ فِي الشِّدَّةِ، وَاعْلَمْ أَنَّ مَا أَخْطَأَكَ لَمْ يَكُنْ لِيُصِيبَكَ، وَمَا أَصَابَكَ لَمْ يَكُنْ لِيُخْطِئَكَ، وَاعْلَمْ أَنَّ النَّصْرَ مَعَ الصَّبْرِ، وَأَنَّ الفَرَجَ مَعَ الْكَرْبِ، وَأَنَّ مَعَ الْعُسْرِ يُسْراً.»

## Hedîsa Nozdehan



Ji Ebû 'Ebbas 'Ebdullah b. 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye:

Rojekê ez li pişt Pêxember (s.) bûm, ji min re got: «Xorto, ezê çend peyvan hînî te bikim: Tixûbên Xweda biparêze, wê ew jî te biparêze. Tixûbên Xweda biparêze, tu yê Wî li pêşiya xwe bibînî. Dema te tiştek xwest, ji Xwedê bixwaze û dema te arîkarî jî xwest dîsa ji Xwedê bixwaze. Bizanibe eger ummet hemî bicive da ku qenciyekê bi te bike, ji bilî tişta ku Xweda ji te re nivîsiye, nikare tu qenciyê bi te bike. Û eger ummet bicive da ku zirarekê bide te, ji bilî tişta ku Xwedê ji te re nivîsiye, nikare tu zirarê bide te. Qelem hatine rakirin û defter jî ziwa bûne."

Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye hedîseke hesen û *sehîh* e.

Di rîwayeteke ji xeynî ya Tirmizî de wiha ye:

«Xwedê biparêze, tu yê wî li pêşiya xwe bibînî. Di firehiyê de xwe bi Xwedê bide naskirin, ewê jî di tengiyê de te nas bike. Bizanibe tişta ku nehatiye serê te, jixwe yê şaşîtî nekira û nehata serê te. Tişta ku hatiye serê te jî, dîsa yê şaşîtî nekira, yê ji xwe bihata serê te. Bizanibe ku serkeftin bi sebrê re ye, firehî bi tengasiyê re ye û zehmetî jî bi hêsaniyê re."

## الحديث العشرون

عَنْ أَبِي مَسْعُودٍ عُقْبَةَ بنِ عَمْرٍو الْأَنْصَارِيِّ الْبَدْرِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ «إِنَّ مِمَّا أَدْرَكَ النَّاسُ مِنْ كَلَامِ النُّبُوَّةِ الْأُولَى إِذَا لَمْ تَسْتَحِ فَاصْنَعْ مَا شِئْتَ.»

رواه البخاري.

## Hedîsa Bîstan



Ji Ebû Mes'ûdê Ensarî î Bedrî, 'Uqbe b. 'Emr (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Bêguman yek ji tişta ku mirov ji pêxemberên pêşîn hîn bûne ev e: "Dema tu şerm nekî, tu çi dixwazî bike!"

Buxarî rîwayet kiriye.

## الحديث الحادي والعشرون

عَنِ أَبِي عَمْرٍو، وَقِيلَ، أَبِي عَمْرَةَ سُفْيَانَ بنِ عَبْدِ اللهِ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللهِ قُلْ لِي فِي الإِسْلَامِ قَوْلاً لاَ أَسْأَلُ عَنْهُ أَحداً غَيْرَكَ؟ قَالَ: «قُلْ آمَنْتُ بِاللهِ ثُمَّ اسْتَقِمْ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Bîst û Yekê



Ji Ebû ‘Emr (Ebû *‘Emrete* jî hatiye gotin) Sufyan b. ‘Ebdullah (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye:

Min got: “Ey Pêxemberê Xweda! Ji min re gotinekê di îslamê de bibêje ku ji bilî te ji kesî din nepirsim.” Got: “Bibêje min îman bi Xwedê anî û pey re jî xwe rast bike.”

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الثاني والعشرون

عَنْ أَبِي عَبْدِ اللهِ جَابِرِ بنِ عَبْدِ اللهِ الأَنْصَارِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا أَنَّ رَجُلاً سَأَلَ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ فَقَالَ: «أَرَأَيْتَ إِذَا صَلَّيْتُ الصَّلَواتِ الْمَكْتُوبَاتِ، وَصُمْتُ رَمَضانَ، وَأَحلَلْتُ الْحَلاَلَ، وَحَرَّمْتُ الْحَرَامَ، وَلَمْ أَزِدْ عَلَى ذَلِكَ شَيْئاً، أَأَدْخُلُ الْجَنَّةَ؟ قَالَ: نَعَمْ.»

رواه مسلم.

ومعنى حرمت الحرام: اجتنبته، ومعنى أحللت الحلال: فعلته معتقدا حله.

## Hedîsa Bîst û Duduyan



Ji Ebû 'Ebdullah, Cabir b. 'Ebdullahê Ensarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku miroveki ji Pêxemberê Xweda (s.) pirs kir:

"Ma tu çawa dibînî, eger ez nimêjên ferz bikim, rojiya Remezanê bigirim, tişta helal helal bikim û ya heram jî heram bikim lê tişteki din li ser van zêde nekim? Ma ezê biçim bihiştê?" Pêxember gotiyê: "Belê."

Muslim rîwayet kiriye.

Maneya "tişta heram heram bikim" yanî xwe jê dûr bikim. Û maneya "tişta helal helal bikim" yanî ez bikim û bawer bikim ku helal e.

## الحديث الثالث والعشرون

عَنْ أَبِي مَالِكٍ الحَارِثِ بنِ عَاصِم ٱلأَشْعَرِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «الطُّهُورُ شَطْرُ الإِيمَانِ، والْحَمْدُ للهِ تَمْلأُ الْمِيزَانَ، وسُبْحَانَ اللهِ والْحَمْدُ للهِ تَمْلآنِ – أَو تَمْلأُ – مَا بَيْنَ السَّمَاءِ والأَرْضِ، وَالصَّلاةُ نُورٌ، والصَّدَقَةُ بُرْهَانٌ، وَالصَّبْرُ ضِيَاءٌ، وَالقُرْآنُ حُجَّةٌ لَكَ أَوْ عَلَيْكَ، كُلُّ النَّاسِ يَغْدُو فَبَائِعٌ نَفْسَهُ فَمُعْتِقُهَا أَو مُوبِقُهَا.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Bîst û Sisêyan



Ji Ebû Malik Haris b. 'Asimê Eş'erî (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Paqijî ji îmanê ye. 'Elhemdulîllah' şehînê tijî dike. 'Subhanellah' û 'Elhemdulîllah' navbera erd û ezman tijî dikin. Nimêj ronahî ye, sedeqe delîl e, sebr şewq e. Quran jî delîl e: ji bo te, yan jî li dijî te. Li her mirovî dibe sibeh, êdî ew yan nefsa xwe azad dike, yan jî helak dike."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الرابع والعشرون

عَنْ أَبِي ذرٍّ الْغِفَارِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ فِيمَا يَرْوِيهِ عَنْ رَبِّهِ عزَّ وَجَلَّ أَنَّهُ قَالَ: «يَا عِبَادِي إِنِّي حَرَّمْتُ الظُّلْمَ عَلَى نَفْسِي وَجَعَلْتُهُ بَيْنَكُمْ مُحَرَّماً فَلاَ تَظَالَمُوا، يَا عِبَادِي كُلُّكُمْ ضَالٌّ إلاَّ مَنْ هَدَيْتُهُ فَاسْتَهْدُونِي أَهْدِكُمْ، يَاعِبَادِي كُلُّكُمْ جَائِعٌ إلاَّ مَنْ أَطْعَمْتُهُ فَاسْتَطْعِمُونِي أُطْعِمْكُمْ، يَا عِبَادِي كُلُّكُمْ عَارٍ إِلاَّ مَنْ كَسَوْتُهُ فَاسْتَكْسُونِي أَكْسُكُمْ، يَا عِبَادِي إِنَّكُمْ تُخْطِئُونَ بِاللَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَأَنَا أَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمِيعاً فَاسْتَغْفِرُونِي أَغْفِرْ لَكُمْ، يَا عِبَادِي إِنَّكُمْ لَنْ تَبْلُغُوا ضَرِّي فَتَضُرُّونِي وَلَنْ تَبْلُغُوا نَفْعِي فَتَنْفَعُونِي، يَاعِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ كَانُوا عَلَى أَتْقَى قَلْبِ رَجُلٍ وَاحِدٍ مِنْكُمْ مَا زَادَ ذَلِكَ فِي مُلْكِي شَيْئاً، يَا عِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ كَانُوا عَلَى أَفْجَرِ قَلْبِ رَجُلٍ وَاحِدٍ مِنْكُمْ مَا نَقَصَ ذَلِكَ مِنْ مُلْكِي شَيْئاً، يَا عِبَادِي لَوْ أَنَّ أَوَّلَكُمْ وَآخِرَكُمْ وَإِنْسَكُمْ وَجِنَّكُمْ قَامُوا فِي صَعِيدٍ وَاحِدٍ فَسَأَلُونِي فَأَعْطَيْتُ كُلَّ وَاحِدٍ مَسْأَلَتَهُ مَا نَقَصَ ذَلِكَ مِمَّا عِنْدِي إِلاَّ كَمَا يَنْقُصُ الْمِخْيَطُ إِذَا أُدْخِلَ البَحْرَ، يَا عِبَادِي إِنَّمَا هِيَ أَعْمَالُكُمْ أُحْصِيهَا لَكُمْ ثُمَّ أُوَفِّيكُمْ إِيَّاهَا فَمَنْ وَجَدَ خَيْراً فَلْيَحْمَدِ اللهَ وَمَنْ وَجَدَ غَيْرَ ذَلِكَ فَلاَ يَلُومَنَّ إلاَّ نَفْسَهُ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Bîst û Çaran



Ji Ebû Zerrê Xifarî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) wiha ji Rebbê ragihandiye:

"Gelî evdên min! Bêguman min zilm li nefsa xwe heram kiriye û di navbera we de jî heram kiriye, êdî zilmê li hev nekin. Gelî evdên min! Ji bilî kesê ku min ew hîdayet kiriye (aniye ser rêya rast), hûn hemî jirêketî ne, êdî hîdayetê ji min bixwazin da ez we hîdayet bikim. Gelî evdên min! Ji bilî kesê ku min ew têr kiriye, hûn hemî birçî ne, naxwe ji min bixwazin da ku ez we têr bikim. Gelî evdên min! Ji bilî kesê ku min cil lê kiriye, hûn hemî tazî ne, naxwe ji min bixwazin da ez we bi cil bikim.

Gelî evdên min! Hûn bi şev û roj gunehan dikin û yê ku gunehan efû dike jî her ez im, naxwe efûkirinê ji min bixwazin da ez we efû bikim. Gelî evdên min! Bêguman hûn nagihin zerardayina min ku hûn zirarê bidin min. Û hûn nagihin qencîkirina bi min ku hûn bi min qenciyê bikin.

Gelî evdên min! Ger pêşiyên we û paşiyên we, însên we û cinnên we hemî mîna dilê mirovekî herî xweparêz û ji Xwedêtirs bin jî, ev tu tiştî li milkê min zêde nake. Gelî evdên min! Ger pêşiyên we û paşiyên we, insên we û cinnên we hemî mîna dilê xirabtirînê we bin jî, ev ji milkê min tu tiştî kêm nake. Gelî evdên min! Ger pêşiyên we û paşiyên we, insên we û cinnên we hemî di meydanekê de bicivin û ji min bixwazin û ez jî daxwaza hemûyan bidim wan. Çawa derzîya ku tu bixî behrê tiştekî jê kêm neke, eynen wisa tişta li cem min jî kêm nabe.

Gelî evdên min! Bêguman ev kirinên we ne, ez ji we re dihesibînim, pişt re jî ezê encama wan bidim we. Êdî kî rastî qenciyê hat, bila hemdê Xwedê bike û kî jî ji xeynî qenciyê rastî tiştekî din hat, bila ji nefsa xwe pê ve lomê li tu kesî neke."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الخامس والعشرون

عَنْ أَبِي ذَرٍّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَيضًا أَنَّ أُنَاسًا مِنْ أَصْحَابِ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالُوا لِلنَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ «يَارَسُولَ اللهِ ذَهَبَ أَهْلُ الدُّثُورِ بِالأُجُورِ، يُصَلُّونَ كَمَا نُصَلِّي، وَيَصُومُونَ كَمَا نَصُومُ، وَيَتَصَدَّقُونَ بِفُضُولِ أَمْوَالِهِمْ.» قَالَ: «أَوَ لَيْسَ قَدْ جَعَلَ اللهُ لَكُمْ مَا تَصَّدَّقُونَ؟ إِنَّ بِكُلِّ تَسْبِيحَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَكْبِيرَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَحْمِيدَةٍ صَدَقَةً، وَكُلِّ تَهْلِيلَةٍ صَدَقَةً، وَأَمْرٍ بِالْمَعْرُوفِ صَدَقَةٌ، وَنَهْيٍ عَنْ مُنْكَرٍ صَدَقَةٌ، وَفِي بُضْعِ أَحَدِكُمْ صَدَقَةٌ.» قَالُوا: «يَا رَسُولَ اللهِ أَيَأْتِي أَحَدُنَا شَهْوَتَهُ وَيَكُونُ لَهُ فِيهَا أَجْرٌ؟» قَالَ: «أَرَأَيْتُمْ لَوْ وَضَعَهَا فِي حَرَامٍ أَكَانَ عَلَيْهِ وِزْرٌ؟ فَكَذَلِكَ إِذَا وَضَعَهَا فِي الْحَلَالِ كَانَ لَهُ أَجْرٌ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Bîst û Pêncan



Dîsa ji Ebû Zerr (r.) hatiye rîwayetkirin ku hinekan ji sehabiyên Pêxemberê Xweda (s.) ji Pêxember (s.) re gotin:

"Ey Pêxemberê Xweda! Dewlemendan xêr hemî ji xwe re birin. Weke me nimêj dikin, weke me rojî digirin û bi malê xwe yê zêde jî xêran dikin." Pêxember got: Ma Xweda tişta ku hûn wê bikin sedeqe nedaye we jî? Her gotina 'subhanellah' sedeqeyek e, her gotina 'ellahu ekber' sedeqeyek e, her gotina 'la îlahe îllellah' sedeqeyek e. Emrê bi qenciyê sedeqeyek e, nehya ji xirabiyê jî sedeqeyek e. Û ku hûn diçin nivîna xwe jî sedeqeyek e." Gotin: "Ey Pêxemberê Xweda! Ma dema yek ji me şehweta xwe tetmîn bike, ji ber vê kirinê jî jê re xêr heye?" Got: "Ma dema ku di rêya heram de xwe tetmîn bikira jê re guneh tunebû? Eynî wisa dema bi rêya helal jî bike, jê re xêr heye!"

Muslim rîwayet kiriye.

# الحديث السادس والعشرون

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «كُلُّ سُلامَى مِنَ النَّاسِ عَلَيْهِ صَدَقَةٌ كُلَّ يَوْمٍ تَطْلُعُ فِيهِ الشَّمْسُ تَعْدِلُ بَيْنَ اثْنَيْنِ صَدَقَةٌ، وَتُعِينُ الرَّجُلَ فِي دَابَّتِه فَتَحْمِلُ لَهُ عَلَيْهَا أَوْ تَرْفَعُ لَهُ عَلَيْهَا مَتَاعَهُ صَدَقَةٌ، وَالْكَلِمَةُ الطَّيِّبَةُ صَدَقَةٌ، وَبِكُلِّ خُطْوَةٍ تَمْشِيهَا إِلَى الصَّلاَةِ صَدَقَةٌ، وَتُمِيطُ الْأَذَى عَنِ الطَّرِيقِ صَدَقَةٌ.»

رواه البخاري ومسلم.

## Hedîsa Bîst û Şeşan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Her roja ku roj derdikeve, li ser her mefseleyeke (movikeke) însan sedeqeyek lazim e. Tu navbera du mirovan çêbikî sedeqe ye. Tu alîkariya yekî bikî, wî li dewara wî siwar bikî, yan jî pê re barê wî bar bikî sedeqe ye. Gotina xweş sedeqe ye. Her gaveke ku tu bi bal nimêjê ve bavêjî sedeqe ye. Û tu astengekê jî ji rê bidî alî sedeqe ye."

Buxarî û Muslim rîwayet kirine.

## الحديث السابع والعشرون

عَنِ النَّوَاسِ بنِ سَمْعَانَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ، عَنِ النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «اَلْبِرُّ حُسْنُ الْخُلُقِ وَالإِثْمُ مَا حَاكَ فِي نَفْسِكَ وَكَرِهْتَ اَنْ يَطَّلِعَ عَلَيْهِ النَّاسِ.»

رواه مسلم.

وَعَنْ وَا بِصَةَ بنِ مَعْبَدٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ، قَالَ: أَتَيْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ، فَقَالَ: «جِئْتَ تَسْأَلُ عَنِ اْلبِرِّ» قُلْتُ: «نَعَمْ.» قَالَ: «اِسْتَفْتِ قَلْبَكَ؛ اَلْبِرُّ مَا اطْمَأَنَّت إِلَيْهِ النَّفْسُ وَاطْمَأَنَّ إِلَيْهِ اْلقَلْبُ، وَاْلإِثْمُ مَا حَاكَ فِي النَّفْسِ وَتَرَدَّدَ فِي الصَّدْرِ، وَإِنْ أَفْتَاكَ النَّاسُ وَأَفْتَوْكَ.»

حديث حسن رويناه في مسندي الإمامين أحمد بن حنبل والدرامي بإسناد حسن.

## Hedîsa Bîst û Heftan



Ji Newwas b. Sem‘an (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxember (s.) gotiye:

„Qencî exlaqê xweş e. Guneh jî ew e dudiliyê bi te re çêdike û tu naxwazî ku mirov pê bihesin.“

Muslim Rîwayet kiriye.

Ji Wabîse b. Me'bid (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Ez hatim cem Pêxemberê Xweda (s.) ji min re got:

„Tu hatî qenciyê pirs bikî?" Min got: "Belê." Got: "Fetwayê ji dilê xwe bixwaze. Qencî ew e ku nefsa mirov û dilê mirov pê rihet in. Û Guneh jî ew e ku di nefsa mirov de dudiliyê çêdike û mirov dikeve erênayê, çendîn ku mirov ji te re fetwayê bidin jî."

Hedîseke *hesen* e. Îmam Ehmed b. Henbel û Îmam Derramî di *Musnedên* xwe de rîwayet kirine.

# الحديث الثامن والعشرون

عَن أَبِي نَجِيحِ الْعِرْبَاضِ بنِ سَارِيَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: وَعَظَنا رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ مَوعِظَةً وَجِلَتْ مِنْهَا الْقُلُوبُ وَذَرَفَتْ مِنْهَا الْعُيُونُ. فَقُلْنَا: «يَارَسُولَ اللهِ كَأَنَّهَا مَوْعِظَةُ مُوَدِّعٍ فَأَوصِنَا.» قَالَ: «أُوصِيكُمْ بِتَقْوَى اللهِ عَزَّ وَجَلَّ وَالسَّمْعِ وَالطَّاعَةِ وَإِنْ تَأَمَّرَ عَلَيْكُمْ عَبْدٌ حَبَشِيٌّ، فَإِنَّهُ مَنْ يَعِشْ مِنْكُمْ فَسَيَرَى اخْتِلافاً كَثِيراً؛ فَعَلَيْكُمْ بِسُنَّتِي وَسُنَّةِ الْخُلَفَاءِ الرَّاشِدِينَ الْمَهْدِيِّينَ عَضُّوا عَلَيْهَا بِالنَّوَاجِذِ وَإِيَّاكُمْ وَمُحْدَثَاتِ الأُمُورِ فإِنَّ كُلَّ مُحْدَثَةٍ بِدْعَةٌ، وَكُلَّ بِدْعَةٍ ضَلاَلَةٌ.»

رواه أبو داود والترمذي وقال: حديث حسن صحيح.

## Hedîsa Bîst û Heştan



Ji Ebû Necîh 'Îrbad b. Sariye (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxemberê Xweda (s.) we'zine wisa li me kirin ku dil şewitîn û çavan hêstir barandin. Me got: "Ey Pêxemberê Xweda! Ev mîna we'za xatirxwestinê bû, ka şîretan li me bike!" Got: "Ez wesiyeta bi tirsa ji Xwedê -'ezze we celle- dikim. Çendîn ku evdekî hebeşî jî bibe fermandarê we lê guhdarî bikin û gotinên wî bînin cih. Lewra kî ji we sax bimîne, yê paşê pir îxtîlafan bibîne. Wê demê bi sunneta min û sunneta xelîfên raşid û hîdayetker bigirin û didanê kursiyan lê bişidînin. Zinhar, xwe ji tiştên ku li pey min bêne zêdekirin dûr bikin! Çimkî her lêzêdekirinek bid'e ye û her bid'eyek jî jirêketin e."

Ebû Dawud û Tirmizî rîwayet kirine. Tirmizî gotiye hedîseke *hesen* û *sehîh* e.

## الحديث التاسع والعشرون

عَنْ مُعَاذِ بنِ جَبَلٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قُلْتُ يَا رَسُولَ اللهِ أَخْبِرْنِي بِعَمَلٍ يُدْخِلُنِي الْجَنَّةَ وَيُبَاعِدُنِي مِنَ النَّارِ قَالَ: «لَقَدْ سَأَلْتَ عَنْ عَظِيمٍ وَإِنَّهُ لَيَسِيرٌ عَلَى مَنْ يَسَّرَهُ اللهُ تَعَالَى عَلَيْهِ: تَعْبُدُ اللهَ لاَتُشْرِكُ بِهِ شَيْئًا، وَتُقِيمُ الصَّلاَةَ، وَتُؤْتِي الزَّكَاةَ، وَتَصُومُ رَمَضَانَ، وَتَحُجُّ الْبَيْتَ. ثُمَّ قَالَ: أَلاَ أَدُلُّكَ عَلَى أَبْوَابِ الْخَيْرِ: اَلصَّوْمُ جُنَّةٌ، وَالصَّدَقَةُ تُطْفِئُ الْخَطِيئَةَ كَمَا يُطْفِئُ الْمَاءُ النَّارَ، وَصَلاَةُ الرَّجُلِ فِي جَوْفِ اللَّيْلِ ثُمَّ تَلاَ: (تَتَجَافَى جُنُوبُهُمْ عَنِ الْمَضَاجِعِ) حَتَّى بَلَغَ: (يَعْمَلُونَ) ثُمَّ قَالَ:«أَلاَ أُخْبِرُكَ بِرَأْسِ الْأَمْرِ وَعَمُودِهِ وَذِرْوَةِ سَنَامِهِ؟ قُلْتُ: بَلَى يَارَسُولَ اللهِ، قَالَ: رَأْسُ الْأَمْرِ اَلْإِسْلامُ وَعَمُودُهُ الصَّلاَةُ وَذِرْوَةُ سَنَامِهِ اَلْجِهَادُ ثُمَّ قَالَ: أَلاَ أُخْبِرُكَ بِمِلاَكِ ذَلِكَ كُلِّهِ؟ قُلْتُ: بَلَى يَارَسُولَ اللهِ. فَأَخَذَ بِلِسَانِهِ وَقَالَ: كُفَّ عَلَيْكَ هَذَا. قُلْتُ يَا نَبِيَّ اللهِ وَإِنَّا لَمُؤَاخَذُونَ بِمَا نَتَكَلَّمُ بِهِ؟ فَقَالَ: ثَكِلَتْكَ أُمُّكَ، وَهَلْ يَكُبُّ النَّاسَ فِي النَّارِ عَلَى وُجُوهِهِمْ أَوْ قَالَ: عَلَى مَنَاخِرِهِمْ إِلاَّ حَصَائِدُ أَلْسِنَتِهِمْ.»

رواه الترمذي وقال: حديث حسن صحيح.

## Hedîsa Bîst û Nehan



Ji Mu'az b. Cebel (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye, min got: "Ey Pêxemberê Xweda! Ji min re karekî bibêje ku min bibe bihiştê û min ji agir dûr bike." Wî jî got: "Bêguman te tiştekî mezin pirsî. Ew ji kesê ku Xwedê jê re hêsan kiriye re hêsan e: Tu ji Xwedê re îbadet bikî û tu tiştî jê re nekî şirîk, nimêj bikî, zekatê bidî, Remezanê rojî bigirî û herî Hecê." Paşê got: "Ma ez deriyên xêrê nîşanî te nedim?: Rojî mertal e, sedeqe, mîna ku av agir vedimirîne gunehan vedimirîne. Û nimêja ku mirov di nîvê şevê de dike..." Paşê xwend: "Kêlekên wan ji nivînên wan dûr dibin...",(1) heta gihat peyva "ye'melûn". Paşê got: Ma ez ji te re serê meselê, sitûna wê û zîrweya wê nebêjim?" Min got: "Belê, ey Pêxemberê Xweda!" Got: "Serê her tiştî îslam e, sitûna wê nimêj e, û zîrweya wê jî cîhad e." Paşê got: "Ma ez ji te re bingeha van tevan nebêjim?" Min got: "Belê, ya Pêxemberê Xweda!" Bi zimanê xwe girt û got: "Bela vî ji xwe veke!"

Min got: "Ey Pêxemberê Xweda! Ma ji ber Axaftinên me jî yê li me bê girtin?" Got: "Dêya te bê te bimîne! Ma ji gotinên zimanê mirovan pê ve çi ye ku mirovan li ser rûyê wan -yan jî li ser pozên wan- wan tavêje agir?"

(1.) Sûretê Secde: 32/16-17.

## الحديث الثلاثون

عَنْ أَبِي ثَعْلَبَةَ الخُشَنِيِّ جُرثُوم بنِ نَاشِرٍ رَضِيَ الله عَنْهُ عَنْ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «إِنَّ اللهَ تَعالَى فَرَضَ فَرَائِضَ فَلا تُضَيِّعُوهَا، وَحَدَّ حُدُودًا فَلا تَعْتَدُوهَا وَحَرَّمَ أَشْيَاءَ فَلاَ تَنْتَهِكُوهَا، وَسَكَتَ عَنْ أَشْيَاءَ رَحْمَةً لَكُمْ غَيْرَ نِسْيَانٍ فَلاَ تَبْحَثُوا عَنْهَا.»

حديث حسن رواه الدارقطني وغيره.

## Hedîsa Sihî



Ji Ebû Se'lebeyê Xuşenî Cursûm b. Naşir (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Bêguman Xwedê hinek tişt ferz kirine, wan wenda nekin! Hinek tixûb danîne, ji wan derbas nebin! Hinek tişt heram kirine, têkilî wan nebin! Û hinek tişt jî ne ku ji bîr kirine; ji bo rehmê li we bike behsa wan nekiriye, êdî hûn jî pirsa wan nekin!"

Hedîseke *hesen* e, Darequtnî û hinekên din rîwayet kirine.

# الحديث الحادي والثلاثون

عَنْ أَبِي الْعَبَّاسِ سَهْلِ بنِ سَعْدٍ السَّاعِدِي رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: جَاءَ رَجُلٌ إِلَى النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ فَقَالَ: يَا رَسُولَ اللهِ: دُلَّنِي عَلَى عَمَلٍ إِذَا عَمِلْتُهُ أَحَبَّنِي اللهُ، وَأَحبَّنِي النَّاسُ؟ فَقَالَ: «ازْهَدْ فِي الدُّنْيَا يُحِبَّكَ اللهُ، وَازْهَدْ فِيمَا عِنْدَ النَّاسِ يُحِبَّكَ النَّاسُ.»

حديث حسن رواه ابن ماجة وغيره بأسانيد حسنة.

## Hedîsa Sî û Yekê



Ji Ebû 'Ebbas Sehl b. Se'dê Sa'idî (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Mirovek hate cem Pêxember (s.) û got:

"Ey Pêxemberê Xweda! Karekî wisa nîşanî min bide, dema ku min ew kir, Xweda jî ji min hez bike û mirov jî ji min hez bikin." Pêxember got: "Çavê xwe bernede dunyayê yê Xweda ji te hez bike. Çavê xwe bernede tiştên li cem mirovan, yê mirov jî ji te hez bikin."

Hedîseke *hesen* e, ibnu Maceh û hinekên ji bilî wî jî bi senedên *hesen* rîwayet kirine.

# الحديث الثاني والثلاثون

عنْ أَبي سَعيدٍ سَعْدِ بن مَالِكِ بن سِنَانٍ الخُدْريِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ أَنَّ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «لاَ ضَرَرَ ولاَ ضِرَارَ.»

حديث حسن رواه ابن ماجة، والدّارقطنيّ وغيرهما مسندا، ورواه مالك في الموطّأ مرسلاً عن عمرو بن يحيي عن أبيه عن النبي صلّى الله عليه وآله وسلّم فأسقط أبا سعيد، وله طرق يقوّي بعضها بعضا.

## Hedîsa Sî û Duduyan



Ji Ebû Se'îd, Se'd b. Malik b. Sînanê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"(Di îslamê de) ne zirardîtin heye, ne jî zirardayin."

Hedîseke *hesen* e, ibnu Maceh, Darequtnî û hinekên din bi şiklê *musned* rîwayet kirine. Malik di *Muwetteê* de ji Emr b. Yehya, wî jî ji bavê xwe, wî jî ji Pêxember (s.) bi şiklê *mursel* rîwayet kiriye; Ebû Se'îd (yê sehabî) ji rêza senedê avêtiye. Lê hinek rîwayetên wî yên din jî hene ku seneda hedîsê destek dikin.

## الحديث الثالث والثلاثون

عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا أَنَّ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «لَوْ يُعْطَى النَّاسُ بِدَعْوَاهُمْ لَادَّعَى رِجَالٌ أَمْوَالَ قَوْمٍ وَدِمَاءَهُمْ، وَلَكِنِ الْبَيِّنَةُ عَلَى الْمُدَّعِي، وَالْيَمِينُ عَلَى مَنْ أَنكَرَ.»

حديث حسن رواه البيهقي وغيره هكذا وبعضه في الصحيحين.

## Hedîsa Sî û Siseyan



Ji Ibn 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Eger dozê tenê têrê bikira, wê hinek mirovan doza mal û xwîna hinekan bikira, lêbelê delîl li ser yê dozê vedike ye û sond jî li ser yê ku înkar dike."

Hedîseke *hesen* e, Beyheqî û hinekên din bi vî şiklî rîwayet kirine û hinek ji hedîsê di *Sehîhên* Buxarî û Muslim de jî hatiye rîwayetkirin.

## الحديث الرابع والثلاثون

عَنْ أَبِي سَعِيدٍ الْخُدْرِيِّ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ: «مَنْ رَأَى مِنْكُمْ مُنْكَراً فَلْيُغَيِّرْهُ بِيَدِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِلِسَانِهِ، فَإِنْ لَمْ يَسْتَطِعْ فَبِقَلْبِهِ وَذَلِكَ أَضْعَفُ الْإِيمَانِ.»

رواه مسلم.

# Hedîsa Sî û Çaran



Ji Ebû Se'îdê Xudrî (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min ji Pêxemberê Xweda (s.) bihîst, digot:

"Kî ji we xirabiyekê bibîne bila bi destê xwe wê rabike. Eger nikaribe, bila bi zimanê xwe li hember derbikeve. Eger nekarî wê jî bike, bila bi dilê xwe nerazîbûna xwe nîşan bide. Û jixwe ev jî îmana herî zeîf e."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث الخامس والثلاثون

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «لاَ تَحَاسَدُوا، وَلاَتَنَاجَشُوا، وَلاَ تَبَاغَضُوا، وَلا تَدَابَرُوا، وَلاَ يَبِعْ بَعْضُكُمْ عَلَى بَيْعِ بَعْضٍ، وَكُونُوا عِبَادَ اللهِ إِخْوَانًا، اَلْمُسْلِمُ أَخُو الْمُسْلِمِ، لاَ يَظْلِمهُ، وَلاَ يَخْذُلُهُ، وَلاَيَحْقِرُهُ، اَلتَّقْوَى ههُنَا -وَيُشِيرُ إِلَى صَدْرِهِ ثَلاَثَ مَرَّاتٍ- بِحَسْبِ امْرِىءٍ مِنَ الشَّرِّ أَنْ يَحْقِرَ أَخَاهُ الْمُسْلِمَ، كُلُّ الْمُسْلِمِ عَلَى الْمُسْلِمِ حَرَامٌ دَمُهُ وَمَالُهُ وَعِرْضُهُ.»

رواه مسلم.

## Hedîsa Sî û Pêncan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Hesûdiyê ji hev nekin! Di kirîn û firotinê de li hev zêde nekin! Ji hev nexeyidin! Pişta xwe nedin hev! Bazarê li ser bazara hev nekin! Gelî evdên Xwedê, ji hev re bibin bira! Misliman birayê mislimanî ye; zilmê lê nake, wî bi tenê nahêle û wî piçûk nabîne. Teqwa li vir e!!" -Pêxember sê caran bi bal singa xwe ve îşaret dikir-. "Ji gunehan besî mirovî ye ku birayê xwe yê misliman piçûk bibîne. Her tiştê mirovê misliman li mislimanî heram e: Xwîna wî, malê wî û namûsa wî."

Muslim rîwayet kiriye.

## الحديث السادس والثلاثون

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ عَنِ النَّبِيِّ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ: «مَنْ نَفَّسَ عَنْ مُؤْمِنٍ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ الدُّنْيَا نَفَّسَ اللهُ عَنْهُ كُرْبَةً مِنْ كُرَبِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ، وَمَنْ يَسَّرَ عَلَى مُعْسِرٍ يَسَّرَ اللهُ عَلَيْهِ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَمَنْ سَتَرَ مُسْلِمًا سَتَرَهُ اللهُ فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ، وَاللهُ فِي عَوْنِ الْعَبْدِ مَا كَانَ الْعَبْدُ فِي عَوْنِ أَخِيهِ، وَمَنْ سَلَكَ طَرِيقًا يَلْتَمِسُ فِيهِ عِلْمًا سَهَّلَ اللهُ لَهُ بِهِ طَرِيقًا إِلَى الْجَنَّةِ، وَمَا اجْتَمَعَ قَوْمٌ فِي بَيْتٍ مِنْ بُيُوتِ اللهِ يَتْلُونَ كِتَابَ اللهِ وَيَتَدَارَسُونَهُ بَيْنَهُمْ إِلَّا نَزَلَتْ عَلَيْهِمُ السَّكِينَةُ وَغَشِيَتْهُمُ الرَّحْمَةُ وَحَفَّتْهُمُ الْمَلَائِكَةُ وَذَكَرَهُمُ اللهُ فِيمَنْ عِنْدَهُ، وَمَنْ بَطَّأَ بِهِ عَمَلُهُ لَمْ يُسْرِعْ بِهِ نَسَبُهُ.»

رواه مسلم بهذا اللفظ.

## Hedîsa Sî û Şeşan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, wî jî ji Pêxember (s.) rîwayet kiriye, gotiye:

"Kî kuleke dinyayê ji ser bawermendekî rabike, Xwedê jî kulekê ji kulên roja qiyametê ji ser wî radike. Kî karê yekî di zehmetiyê de be hêsan bike, Xwedê jî li dinya û axretê jê re hêsaniyê çêdike. Kî sitarê bide ser mislimanekî, Xwedê jî li dinya û axretê sitarê dide ser. Heta ku evd di alîkariya birayê xwe de be, Xwedê jî di alîkariya wî de ye. Kî bikeve rêyekê da ku ilmê bi dest bixe, Xweda bi vî karî rêyeke ku diçe bihiştê jê re hêsan dike. Dema ku hinek li malekê ji malên Xwedê bicivin; kîtaba Xwedê bixwînin û di nav xwe de dersê bidin, aramî bi ser wan de tê, rehmet wan dinixumîne, melaîket wan dorpêç dikin û Xwedê jî ji yên li cem xwe re behsa wan dike. 'Emelê kî ew li paş hiştibe, nijada wî wî bi pêş ve nabe."

Muslim bi vî şiklî rîwayet kiriye.

## الحديث السابع والثلاثون

عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا عَنْ رَسُولِ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ فِيمَا يَرْوِيهِ عَنْ رَبِّهِ تَبَارَكَ وَتَعَالَى قَالَ: «إِنَّ اللهَ كَتَبَ الْحَسَنَاتِ وَالسَّيِّئَاتِ ثُمَّ بَيَّنَ ذَلِكَ؛ فَمَنْ هَمَّ بِحَسَنَةٍ فَلَمْ يَعْمَلْهَا كَتَبَهَا اللهُ عِنْدَهُ حَسَنَةً كَامِلَةً، وَإِنْ هَمَّ بِهَا فَعَمِلَهَا كَتَبَهَا اللهُ عِنْدَهُ عَشْرَ حَسَنَاتٍ إِلَى سَبْعِمِائَةِ ضِعْفٍ إِلَى أَضْعَافٍ كَثِيرَةٍ، وَإِنْ هَمَّ بِسَيِّئَةٍ فَلَمْ يَعْمَلْهَا كَتَبَهَا اللهُ عِنْدَهُ حَسَنَةً كَامِلَةً، وَإِنْ هَمَّ بِهَا فَعَمِلَهَا كَتَبَهَا اللهُ سَيِّئَةً وَاحِدَةً.»

رواه البخاري ومسلم في صحيحيهما بهذه الحروف

فانظر يا أخي -وفقنا الله وإياك- إلى عظيم لطف الله تعالى، وتأمل هذه الألفاظ، وقوله: «عِندَهُ» إشارة إلى الاعتناء بها، وقوله: «كاملة» للتأكيد وشدة الاعتناء بها، وقال في السيئة التي هم بها ثم تركها كتبها الله عنده حسنة كاملة فأكدها «بكاملة» وإن عملها كتبها سيئة واحدة، فأكد تقليلها ب«واحدة»، ولم يؤكدها بكاملة، فلله الحمد والمنة، سبحانه لا نحصي ثناءً عليه، وبالله التوفيق.

## Hedîsa Sî û Heftan



Ji Ibn 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xweda (s.) di wê hedîsa ku ji Rebê xwe ragihandiye de gotiye:

"Bêguman Xweda xêr û guneh nivîsîne û eşkere jî kirine: Êdî kî niyeta xêrekê bike û wê neke, Xwedê li cem xwe wê xêreke temam dinivîse. Eger niyeta kirina xêrê kir û kir jî, Xwedê li cem xwe deh xêran, heta bi hefsed qatî û hê jî zêdetir dinivîse. Eger niyeta kirina gunehekî kir, lê dev jê berda, Xwedê li cem xwe ji wî mirovî re xêreke temam dinivîse. Eger niyet kir û guneh jî kir, Xwedê gunehekî tenê dinivîse."

Buxarî û Muslim di *Sehîhên* xwe de, bi van herfan rîwayet kirine.

(Şîroveya Îmamê Newewî:) Birayê delal! Xwedayê Teala min û te serkeftî bike, ka li dayina mezin ya Xwedayê Teala binêre û li van gotinan hûr bifikire: Di gotina "li cem xwe" de îşareta bi bal qîmetdayinê ve heye. Di gotina "temam"ê de hem qîmetdayin hem jî balkişandin heye. Ji gunehê ku yekî niyeta wî kiriye, lê nekiriye re gotiye "xêreke temam", ew bi "temambûnê" tekîd kiriye. Eger bike jî gunehekî tenê dinivîse. Hindikiya wî bi "tenêtiyê" tekîd kiriye, bi "temambûnê" tekîd nekiriye. Êdî hemd û minnet ji Xwedayê Teala re be, ew ji her kêmasiyê pak û dûr e. Em nikarin bi jimar pesnê Wî bidin. Serkeftin her bi Wî ye.

## الحديث الثامن والثلاثون

عَنْ أَبِي هُرَيْرَةَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «إِنَّ اللهَ تَعَالَى قَالَ: مَنْ عَادَى لِي وَلِيًّا فَقَدْ آذَنْتُهُ بِالْحَرْبِ، وَمَا تَقَرَّبَ إِلَيَّ عَبْدِي بِشَيْءٍ أَحَبَّ إِلَيَّ مِمَّا افْتَرَضْتُهُ عَلَيْهِ، وَمَا يَزَالُ عَبْدِي يَتَقَرَّبُ إِلَيَّ بِالنَّوَافِلِ حَتَّى أُحِبَّهُ، فَإِذَا أَحْبَبْتُهُ كُنْتُ سَمْعَهُ الَّذِي يَسْمَعُ بِهِ، وَبَصَرَهُ الَّذِي يُبْصِرُ بِهِ، وَيَدَهُ الَّتِي يَبْطِشُ بِهَا، وَرِجْلَهُ الَّتِي يَمْشِي بِهَا، وَلَئِنْ سَأَلَنِي لأُعْطِيَنَّهُ، وَلَئِنْ اسْتَعَاذَنِي لأُعِيذَنَّهُ.»

رواه البخاري.

## Hedîsa Sî û Heştan



Ji Ebû Hureyre (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

Bêguman Xwedayê Teala gotiye: "Kî bi dostekî min re dijminatiyê bike, bêguman ez pê re şer îlan dikim. Bi qasî ku evdê min bi tiştê ku min li ser ferz kiriye nêzîkî min dibe, bi tu tiştê din ewqas nêzîkî min nabe. Lebelê evdê min ranaweste, bi sunnetan jî nêzîkî min dibe, heta ku ez jê hez dikim. Dema min jê hez kir, êdî ez dibim guhê wî yê ku pê dibihîze, çavê wî yê ku pê dibîne, destê wî yê ku pê pêdigire û piyê wî yê ku pê dimeşe. Û Sond be! Eger ew ji min bixwaze ezê bidimê û eger ji min parastinê bivê, ezê wî biparêzim!"

Buxarî rîwayet kiriye.

## الحديث التاسع والثلاثون

عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا أَنَّ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ قَالَ:

«إِنَّ اللهَ تَجَاوَزَ لِي عَنْ أُمَّتِي الْخَطَأَ وَالنِّسْيَانَ وَمَا اسْتُكْرِهُوا عَلَيْهِ.»

حديث حسن رواه ابن ماجة والبيهقي وغيرهما.

## Hedîsa Sî û Nehan



Ji Ibn 'Ebbas (r.) hatiye rîwayetkirin ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Xweda ji bo min, li ummeta min bihuriye; li tiştên bêhemdî, li jibîrkirinê û li tişta ku bi zorê bi wan tê kirin."

Hedîseke *hesen* e, ibnu Maceh, Beyheqî û jibilî wan hinekên din jî rîwayet kirine.

# الحديث الأربعون

عَنِ ابْنِ عُمَرَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: أَخَذَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ بِمَنْكِبَيَّ فَقَالَ:

«كُنْ فِي الدُّنْيَا كَأَنَّكَ غَرِيبٌ أَوْ عَابِرُ سَبِيلٍ" وَكَانَ ابْنُ عُمَرَ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا يَقُولُ: إِذَا أَمْسَيْتَ فَلا تَنْتَظِرِ الصَّبَاحَ، وَإِذَا أَصْبَحْتَ فَلاَ تَنْتَظِرِ الْمَسَاءَ، وَخُذْ مِنْ صِحَّتِكَ لِمَرَضِكَ، وَمِنْ حَيَاتِكَ لِمَوْتِكَ.»

رواه البخاري.

## Hedîsa Çilî



Ji Ibn 'Umer (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Pêxemberê Xweda (s.) bi milê min girt û got:

"Di dinyayê de wisa be, mîna ku tu biyanî bî, yan jî rêwî bî"

Ibn Umer (r.) digot: "Dema li te bû êvar çavnêriya sibehê neke. Dema li te bû sibeh jî çavnêriya êvarê neke. Hê ku tu nexweş neketî, di tendurustiya xwe de; û hê ku tu nemirî jî di saxiya xwe de tevdîra îbadetê bike."

Buxarî rîwayet kiriye.

## الحديث الحادي والأربعون

عَنْ أَبِي مُحَمَّدٍ عَبْدِ اللهِ بنِ عمْرِو بْنِ العَاصِ رَضِيَ اللهُ عَنْهُمَا قَالَ: قَالَ رَسُولُ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ: «لاَيُؤْمِنُ أَحَدُكُمْ حَتَّى يَكُونَ هَوَاهُ تَبَعًا لِمَا جِئْتُ بِهِ.»

حديث حسن صحيح رويناه في كتاب الحجّة بإسناد صحيح.

## Hedîsa Çil û Yekê

Ji Ebû Muhemmed 'Ebdullah b. 'Emr b. 'As (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye ku Pêxemberê Xweda (s.) gotiye:

"Heta ku hewa û hewesa yekî ji we nebe peyrewa tişta ku ez pê hatime, ew baweriyê naîne."

Hedîseke *sehîh* û *hesen* e, me ew di kitêba *Hucceyê* de bi senedeke *sehîh* rîwayet kiriye.

## الحديث الثاني والأربعون

عَنْ أَنَسٍ رَضِيَ اللهُ عَنْهُ قَالَ: سَمِعْتُ رَسُولَ اللهِ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَآلِهِ وَسَلَّمَ يَقُولُ:

«قَالَ اللهُ تَعَالَى: يَا ابْنَ آدَمَ إِنَّكَ مَا دَعَوْتَنِي وَرَجَوْتَنِي غَفَرْتُ لَكَ عَلَى مَا كَانَ مِنْكَ وَلاَ أُبَالِي، يَا ابْنَ آدَمَ لَوْ بَلَغَتْ ذُنُوبُكَ عَنَانَ السَّمَاءِ ثُمَّ اسْتَغْفَرْتَنِي غَفَرْتُ لَكَ، يَا ابْنَ آدَمَ إِنَّكَ لَوْ أَتَيْتَنِي بِقُرَابِ الْأَرْضِ خَطَايَا ثُمَّ لَقِيتَنِي لاَتُشْرِكُ بِي شَيْئًا لأَتَيْتُكَ بِقُرَابِهَا مَغْفِرَةً.»

رواه الترمذيّ وقال: حديث حسن صحيح.

## Hedîsa Çil û Duduyan



Ji Enes (r.) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Min bihîst ku Pêxemberê Xweda (s.) digot:

"Xweda gotiye: 'Ey zariwê Adem! Her dema ku tu gazî min bikî û ji min bixwazî, te çi jî kiribe ezê te bibexşînim û guh nadim pirbûna gunehên te. Ey zariwê Adem! Eger gunehên te bigihin ewrên ezmanan jî û paşê tu daxwaza bexşandinê ji min bikî, ezê dîsa te bibexşînim. Ey zariwê Adem! Eger tu bi qasî dagirtina erdê bi gunehan werî cem min, lê te qet şirîk ji min re çênekiribin û werî huzûra min, ezê bi qasî dagirtina erdê bi bexşandinê te pêşwaz bikim."

Tirmizî rîwayet kiriye û gotiye, "hedîseke *hesen* û *sehîh* e."

Yehya b. Şerefeddînê Newewî ku di nav alema îslamê de bi "Îmamê Newewî" tê naskirin ji mijarên bawerî, exlaq, îbadet, mafê jîndaran û hwd. li gora xwe 42 hedîsên herî girîng hilbijartine û kirine kitêb. Çawa ku Îmamê Newewî jî di pêşgotina xwe de dibêje, gellek alimên beriya min jî xwe sipartine hedîsa; "Kî ji ummeta min re çil hedîsan ji mijarên dînî jiber bike, roja qiyametê dê Xweda wî di nav feqîh û aliman de bîne heşrê." û bi navê el-Erbe'în berhemên ji çil hedîsî pêkhatî anîne holê.
Jiber meşhûrbûna navê wî û ji ber hilbijartina hedîsên muhîm Çil Hedîsa Îmamê Newewî di nav berhemên bi vî awayî de bêtir deng daye û belav bûye.





9 786055 402433